Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

# agiri

Hejmar: 41
15'ê June 2006
Buha: 150 Tûmen

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Pîrozbahî

Salek ji temenê xebat û xizmetên Televîzyona Kurdî a "Zagros"ê borî...
Rûpela 9

ZAGROS

Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê

### Derheq Şermezarkirina Komployeke Komara Îslamî



Siyasî R. 2

Nameya Kongireya Neteweyên Îrana Federal

### Ji Bo Sekreterê Giştî Yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî



Siyasî R. 2

Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê

### Li Amerîkayê Beşdariya Konferansa "KNC" Yê Kir




Siyasî R. 4

### PERWERDEHÎ



Çand R. 10

# Bi hebûna rejîma Îranê cîhan û Rojhilata Navîn ewlekarî tu nabe

**"Senate"a Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê mêvandarê birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îanê bû. Kekê Mistefa li wir gotarek bi zimanê Îngilîzî pêşkêş kir û tê de bi hûrî û berfirehî li ser rola Hikûmeta Îslamî ya Îranê ji bo binpêkirina maf û azadiyên mirovî û neteweyî yên gelên Îranê û her wiha afirandina kirîz û pirsgirêkên zaf ku ji bo welatên herêmê û civaka cîhanî pêk anîne, sekinî...**

Siyasî R. 2



## Di hola "CONGRESS"a DYA de, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, maf û azadiyên siyasî û neteweyî yên gelê Kurd li Kurdistana Îranê anî ziman û li ser wan daxwaziyan tekez kir

Di gera xwe ya ji bo derveyî welat, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, Hêja Mistefa Hicrî ji bo "Congress"a Amerîkayê hate vexwendin û bi zimanê Îngilîzî gotarek dewlemend û pir alî li ser rojeva siyasî ya herêma Rojhilata Navîn, rewşa rejîma Komara Îslamî ya Îranê û her wiha jiyana neteweya Kurd li Îranê û xebat û tekoşîna neteweyên Îranê ji bo guherîna vê rejîma ne demokratîk û paşverû pêşkêş kir.

Deqa Kurmancî ya gotara birêz Mistefa Hicrî di vê hejmara Agirî de bixwînin...

Siyasî R. 3

### Hunermend Kazo di hevpeyvîneke taybet bi Agirî re



R. 8-9

### Jinên Îranê Û Çawaniya Gihîştin Bi Mafên Wekheviyê



R. 7

### Xweşewitandin a Jinan Li Kurdistanê her berdewam e



R. 7

# Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Derheq Şermezarkirina Komployeke Komara Îslamî

***Hevwelatî yên hêja!***
***Gelên azadîxwaz ên Îranê!***

Di dema yek sala borî de pêvajoya xebata gelên bin zulma Îranê ji bo gihîştin bi azadî û mafên neteweyî berfirehî û berçaviyeke zêdetir bi xwe ve dîtiye. Li Xozistanê xortên gelê Ereb ji ber guherîna pêkhateya rûniştvanên herêmên Ereb akincî ji aliyê rejîmê ve xwenîşandaneke nerazîbûnê ya berfireh û demdirêj meşand. Li Belûçistanê tevgera gelê Belûç dewreke nû li dijberî tevî rejîmê û hêzên wê ên serkutker dest pê kiriye. Xortên gelê Azerî li piraniya bajaran li hember bêhurmetîkirin bi wê neteweyê di rojnameyeke ser bi rejîmê de, rijiyane ser şeqam û rêgehan û meşên nerazîbûnê yên berfireh li darxistin. Gelê Kurd jî her ji destpêka hatine ser şola Komara Îslamî berdewam li xebata bêrawestiyan dijî vê rejîmê de bûye û di sala çûyî de çendîn caran meş û livên nerazîbûnê li piraniya herî zor ya bajarên Kurdistanê birêve bir.

Heke çi hemû meşên nerazîbûnê ên ku gelên bin zordariya Îranê bi nîşaneya bêzarî ji rejîma Komara Îslamî li xwe dan xuya kirin, tevî tepeserkirina bêrehmane û kuştin û birîndarkirin û girtin û binçavkirina hejmareke zaf ji xortên van gelane berbirû bûn, bi vî halî jî gelên Îranê li ser daxwazên rewa û berheq yên xwe biîsrar in û li xebat ji bo bidestxistina wan berdewam in.

Kûrtirbûna valahiya navbera gelên bin stema Îranê û rejîma dijî azadî a Komara Îslamî ya Îranê ji aliyekê û ev hevdengî û hevahengiya ku di pêvajoya xebata dijî dîktatoriya Komara Îslamî a Îranê di nava gelên jêr zordariya Îranê de tê dîtin û ew alîkariyên ku di çarçoveya Kongireya Neteweyên Îrana Federal de li navbera rêxistinên ser bi neteweyên bin stema Îranê de xwe derdixe holê û ew piştgiriya berfireh û xurt ya ku xortên her yek ji wan neteweyên Îranê hember yên din li xwe didin xuya kirin, rejîma Komara Îslamî bi tevahî di tengasiyê de xistiye û tevî pirsgirêk û arîşeyên micid berbirû kiriye. Lewra û bi ji ji berçavgirtina vê rastiyê ku Komara Îslamî ya Îranê tu rêçareyeke dûz û bingehîn ji bo çareserkirina pirsa neteweyî di Îranê de nine û tevî demokrasî û dana azadiyan bi gelên Îranê nenas û biyanî ye. Wekî her car dixebite bi rêya haşa û înkarkirin ji hebûna pirsgirêka neteweyî di Îranê de, serkut û çewisandina xebatkaran û xortên gelên bin stemê, agirê şoreş û neyariya wan bifetisîne û li rex vê çendê jî bi pîlan û komployên cur bi cur valahiyê bixe vê hevgirtina bê nimûne û vê hevalbendî û hevgavbûna gelên bi sitema Îranê.

Di vê derheqê de û vê dawiyê rejîma Komara Îslamî gelaleya komployeke wisan darêtiye ku sîxor, ajan û kirêgirtiyên xwe di nava gelên Îranê de û heta ew ên ku bi darê zorê di nava refên hêzên rejîmê de ne, bi kincên herêmî yên deverên wan ji bo serkut û tepeserkirina liv û meşên nerazîbûnê ên gelên din yên Îranê bişîne û ji xortên her neteweyek ji gelên bin zordariya Îranê re wiha bide xuyakirin ku eva xortên gelên din in ku ji bo tepeserkirin û fetisandina wan gava pêşîn avêtin û bi vî awayî ne tenê refên hevgirtina gelên Îranê têk bide, belkî agirê dubendî û nakokiyê di nava xortên gelên bin zordariya Îranê de hil bike.

Di vî warî de hewce ye hemû xortên ser bi neteweyên bin sitema Îranê şiyar û li ser hest bin û bizanin ku ew ajan û kirêgirtiyên rejîmê – îca ser bi her neteweyeke Îranê bibin – topizdarên rejîmê ne û ne tenê ew ser bi tu neteweyekî ninin, belkî hergav wek kesên neyênî û li berahiya her neteweyeke din gelê xwe tepeser kirine û dijî tevgera azadîxwaz ya wê neteweyê sekinîne û wekî vê yekê ku ew jî ser bi wê neteweyê



ne.

Di heman demê de em ji tev wan kesan ku bi darê zorê di refa hêzên leşkerî û "Întîzamî" ên rejîmê de hatine cîgir kirin û xortên her yek ji neteweyên Îranê ne, daxwazê dikin xwe li tepeserkirina her gelek ji gelên Îranê biparêzin û nebine dar û destekên rejîmekê ku dijî hemû maf û azadiyên gelên bin sitema Îranê ne û xwe rûreş û şermizarê gel û neteweya xwe û gel û neteweyên din ên bin zordariya di Îranê de nekin.

Roj roja yekbûna gelên bin sitema Îranê ye, roja geşandin û xurtkirina tevgera gelên zulmjêkirî yên Îranê ye, bila em tev yar û alîkarê vê yekbûna biwext û bicih û dîrokî bibin û komployên rejîma dijî gelî ya Komara Îslamî Îslamî ji bo derb lêdayîn li hevgirtin û hevdengiya gelên Îranê bi tavahî vala û pûç bikin.

***Serkevtin ji bo gelên Îranê û azadî û bidestveanîna mafên neteweyî***

***Serşorî û mirin û neman ji bo rejîma dijî gelî ya Komara Îslamî a Îranê***

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**01.06.2006**
**11.03.1385**

---



## Nameya Kongireya Neteweyên Îrana Federal Ji Bo Sekreterê Giştî Yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî



**Cenabê Kofî Enan**
**Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî**

Rê bide me bi navê Kongireya Neteweyên Îrana Federal ku saziyek ji neh sazî û rêxistinên ser bi neteweyên Kurd, Belûç, Turkmen, Ereb, Azerî di Îranê de ne, rabigehînin, di dema bîst û heft sal desthilatdariya Komara Îslamî ya Îranê de, herdem mafên mirovan û demokrasiyê hatiye bin pê kirin.

Her wekî hûn agehdar in, vê dawiyê xelkê Belûçistanê û Azerbaycanê di xwenîşandanên girseyî û şaristaniyane de ku daxwazên xwe yên demokratîk anîbûne rojevê, ji aliyê rejîma Îranê rastî kuştin, girtin, êrîş û gefê hatin. Îro rojê siyasetên tund û ne berpirsyane yên rejîma Îslamî der barê mafê mirovan, demokrasî, piştevanî ji terorîzmê û serbazdan û binpêkirina qanûnên navneteweyî û daxwazên welatên demokratîk derheq qedexekirina berfireh ya çekên Etomî û tevkuj, cîhan tevî xetere û tirseke micid berbirû kiriye û bêguman berpirsiyarya van arîşane heman Komara Îslamî ya Îranê ye.

Kongireya Neteweyên Îrana Federal, çavnihêrê cenabê we û Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ye ku vê êrîşa ne sincî û ne mirovane ya rejîma Îslamî a Îranê derheq binpêkirina mafên mirovan mehkûm bikin û bi hemû awayekî mimkun rejîmê neçar bikin ji encamdana van cinayetane xwe biparêze.

Piştgirî ji xebata demokratîk ya xelkê Îranê alîkariyeke hêja û mezin dê bide aştî û ewlehiya siyasî ya herêmê û cîhanê.

**Tevî hurmetên bê dawî**
**Kongireya Neteweyên Îrana Federal**
**30.05.2006**

# Deqa Axavtina Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê Di "Congrees"a Amerîkayê De

Komara Îslamî ya Îranê binpêkarê rastîn yê pîvanên navneteweyî!

Gelî birêzan!

Hevalên hêja!

Her ji destpêka hatine ser kara rejîma Komara Îslamî a Îranê di sala 1979'an de, tirs û gef ji bo pêşdeçûna terorîzma dewletî, alozî û fitne di asta hêrêmê û cîhanê de, bi xurtî pêş ket. Ji bîra me ye Ayetula Xumeynî wekî nûnerê Xwedê li ser erdê, bi holê anîna stiratejiya şandina şoreşa Îslamî bo derve û dirûşm û silogana wî ya bi nav û deng ku digot: **"Rêya Qudsê ji Kerbelayê derbaz dibe"**, fermîbûneke kemilî da wê rê û rêbaza îdeolojîk ku armanca wê ji nav birina desthilata kafiran- welatên demokratîk- bi giştî û nemaze Îsraîlê bû, di encamê de armanc, pêkanîna Împeratoriyeta Şîî di bin desthilatdariya Melayên Îranê de bû. Siyasetek ku îro ji aliyê Serok Komarê Rejîma Îslamî a Îranê ve hawar û gazî jê re tê kirin. Berhema vê bingeha îdeolojîk ku maytêkirina di kar û barên welatên din û çêkirina fitneyê û binpêkirina qanûn û peymanên pejirandî ên navneteweyî bi erk û wezîfa olî ya xwe dizane û bi eşkere dimeşîne. Siyasetek ku hetanî niha berhema wê, rojreşî û destengî ji bo xelkê welatê me û fitne û ne ewlehî di herêmê û cîhanê de bûye.

Ji destpêkê ve, rejîmê bi çewisandina bêrehmane ya hêzên demokrat û pêşketinxwaz ên civaka Îranê rûçikê veşartî yê xwe nîşanî xelkê Îranê da û şoreşa demokrazîxwazane ya gelên Îranê bi dijî dîktatorî û bê mafiyê bi tevahî bi rêyeke xwar de bir. Kuştina bikom ya girtiyên siyasî, kevirbarana jinan, lixwekirin(Hicab)a bi darê zorê, maytêkirin di jiyan û bihurandina mirovan û dezgeh û saziyên berfireh yên ne demokratîk û ne hilbijartî, wekî "Welayeta Feqîh", Konseya Parêzvan (Nobedar), Civata Diyarîkirina Berjewendiyên Nizamê, "Meclîsa Xubrigan"( bijarte) ên Rêberî û wd... aliyê herî zal yê siyaseta fermî û aşkira ya dewleta Îranê di dema nêzîk bi sê dehsalên borî bûn, ku demokrasî, desthilata gel û parastina mafên mirovan di çarçoveya desthilata Komara Îslamî de bi kiryar yê kiriye babet û mijara bê naverok. Girtin û zîndanîkirin û qirkirina ronakbîrên pêşketinxwaz û tejîkirina girtîgehan ji rojnamevan û azadbîran di dewrana 8 saliya Serok Komariya Xatemî de, mînakên zindî yên vê rastiyê ne ku sîstema Îranê daxistî û ne demokratîk e û guhertin û reform tenê şanoyek e ji bo xwe rêxistina tevî dunyaya derve û xapandina raya giştî di cîhanê de ji bo parastina dezgeha bixof ya wan ku serbarê zengîniya welat di warê xweza û menewî de, encama wê bêşolî, betalî, riziyok, madeyên bêhişker û rojreşî ji bo piraniya xelkê Îranê yê lê ketiye.

Di bîra me tevan de ye ku li destpêka hatina ser kar ya sîstema Komara Îslamî de li Îranê, Xwendekarên peyrewa hêla Îmam, di bervara 3'yê Novembera 1979'an de bi rênûmaya Komîteyên Şoreşê û piştgiriya Ayetula Xumeynî, bi dûr ji hemû qanûn û pîvanên navneteweyî, Balyozxaneya Amerîkayê li Tehranê dagîr kirin û di encam de 66 kes ji berpirs û birêveberên Balyozxaneya wan bo heyamê 444 rojan wekî rehîn girtin.

Ev bizave û kiryare di çaxekê de pêk hat ku dewleta Welatên Yekbûyî yên Amerîkayê di roja 28'ê Rêbendana wê salê de, dewleta demkî û berwext ya Tehranê bi fermî nas kiribû. Cihê bibîranînê ye ku partiya me di daxuyaniya Komîteya Navendî de ev kiryara Xumeynî û hevbîrên wî bi tundî şermezar kir... .

Dewleta navendî ya Îranê bi meşandina vê siyasetê, bi eşkere dijberî tevî pêvajoya Aştiya Filistîn û Îsraîlê dike. Ewa ku desthilatdarên Îranê li piraniya herî zaf ya civînên roja înê de, ku rojeke pîroz ji bo Misilmanan e û bêhnvedana fermî a wan di hefteyê de ye, êrîşê dikin ser Rojava bi giştî û bi taybet Îsraîlê, bê hêcet nine. Belkî armanc eva ye ku warê olî û îdeolojîk ya mijaran biparêzin. Dizanin jî ku îna dawîn ya her meheka Remezanê ku Misilman bi hevyeke pîroz dizanin, ji aliyê dewleta olî ya Îranê ve wekî **Roja Cîhanî ya Quds** hatiye bi nav kirin û di vê rojê de Melayên Îranê dijî Cihûyan alîgirên xwe ku bi xweşî ve roj bo rojê kêm dibin, tînin ser rêyan. Niha dewleta Îranê bi eşkere hevkariyê dide komên terorîstî yên wekî Supaya Mehdî û Muqteda Sedir û Cund El Îslam li Îraqê dike, bona vê çendê ku pêvajoya demokratîzekirina vî welatî piştî nemana desthilata Bees a dîktator, paşde bixin. Xuya ye ku li Efxanistanê, her wê siyasetê dimeşînin û dostîniyeke herî nêzîk a xwe tevî dewleta dîktator ya Sûriyê xurt dikin. Çek, teqemenî û dirav ji bo terorîst û dijberên aştiya Filistîn û Îsraîlê dişînin û serbilindiyê bi piştevanî lêkirina wan dikin.

Di asta navneteweyî de, dewleta Îranê bi terorkirina cudabîrên Îranê, terorîzma dewletî yê daye geşandin. Dr. Ebdulrehman Qasimlo, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, di 13.07.1989'an ya Zayînî de li ser maseya gotûbêjê bi armanca çareserkirina aştiyane a pirsgirêka siyasî ya Kurd, ji aliyê dîplomatên terorîst ên Îranê ve hate şehîd kirin. Di 17'ê Septembera sala 1992'an de, bo cara duyemîn Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî li Berlînê hatin teror kirin. Dadgeha serbixwe ya Almaniyayê piştî nêzîk bi 4 salan lêkolîn û dûdeçûn, bi belge û giroveyên haşa lêneker da selimandin ku rayedarên herî payebilind yên Îranê ev terora ne mirovane birêve birine. Hukmê nû yê dadgeha Swîsê li dor terorîzma Komara Îslamî, derheq terora Dr. Kazim Recewî di 24'ê Avrîla 1990'an de li Swîsê, giroveya cihê



**Di hola "CONGRESS"a DYA de, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, maf û azadiyên siyasî û neteweyî yên gelê Kurd li Kurdistana Îranê anî ziman û li ser wan daxwaziyan tekez kir**

selimandina van rastiyane ye... .

Niha em dibînin ku dewleta Îranê bi van fikirîn û armancane cehd û hewla bidestxistina çekên Etomî dide û bi qasê daxwaza welatên pêşverû û demokrat ji bo parastina xebatên xwe ên Etomî tekezê dike. Em tev bi başî vê rastiyê dizanin ku armanca dewleta Îslamî ya Îranê ji bidestxistina vê çekê, cuda ji parastina desthilata bixof û cihê tirsa û xwe, dasepandin û qebûlandina daxwazên ne berheq ên xwe bi ser dunyaya pêşverû û nûjen û demokrat de ye. Ehmedînejad bi eşkere hawara ji holê rakirina Îsraîlê dike û qirkirina ne mirovane a Cihûyan ji aliyê Hîtler ve bi efsane û çîvanok binav dike, mijarek ku cuda ji armancên siyasî, leşkerî û paropagendeyê, di warê sincî û exlaqî ve cihê xem û kovanê ye.

**Gelî birêzan!**

Rewşa niha ya zal bi ser civaka Îranê, bi li berçavgirtina vê rastiyê ku pêtirî %75 ji nifûsa 70 Milyonî ya Îranê, xelkê temen bin 30 salan pêk tînin û di nava wan de jî pêtirî %51 jin in ku du hemberî mêran zulm û zordarî ji wan tê kirin û di bin siya sîstema Îslamî de bi kiryar welatiyên pile duyemîn in, piraniya nêzîk bi tevahiya maf û azadiyên siyasî û civakî ên wan jê hatine zevt kirin û di bin zext û givaşa giran û dijwar a aborî de ne. Hevdem tevî tepeserkirina bixwîn ya tevgera demokrasîxwaz ya neteweyên Îranê û fetisandina serhildanên Kurd, Azerî, Belûç, Turkmen û Ereban ji aliyê karbidestên dewleta Îranê ve, xebata van netewane û hêzên wan yên demokrat ji bo pêkanîna Îraneke Federal û demokratîk, hevgirtî kiriye. Nimûneya zindî ya vê rastiyê pêkanîna Kongireya Neteweyên Îrana Federal di sala borî de ye. Ev neteweyên ku di Îranê de piraniya rûniştvanên welat pêk




tînin.

PDK Îranê wekî hêza herî mezin û gelî a Kurdên Îranê ku daxwaza çareserkirina pirsgirêka Kurd di çarçoveya Îranê de ye, bi ji berçavgirtina pêkhateya coxrafî û neteweyî di Îranê de û xurtbûna hest û hizra neteweyî li cem gelên ne Fars, sîstema Federalîze kirina Îranê li ser bingeha coxrafî û neteweyî bi awayê herî baş û hêja yê birêvebirina welat dizane.

Serkut û çewisandina bixwîn û totalîtarîzma olî di dema 27 salên çûyî de, di geşekirina vê hesta neteweyî de û her wiha pêşdeçûna demokrasiyê û bidestve hatina mafê gelan di dunyayê de, piştî hilweşîna Yekîtiya Soviyetê bandoreke zaf lîstiye û li ser geşekirina nasyonalîzma netewyên Îranê cihwareke berçav daniye.

PDK Îranê li ser vê baweriyê ye ku dijberiyên navbera Ewropa û Amerîkayê derheq Îranê di dema derbasbûyî de bi vêc û qazancê mana sîstema totalîter ya Îranê bûye, lewra xebat û hewildana ji bo pêkanîna siyaseteke hevdeng û yekbûyî di navbera Ewropiyan ji aliyekê û Amerîka ji aliyê din derheq dewleta Îranê, di heman hal de pêşkêşkirina alîkariyan û piştgirîkirina hêzên demokrat yên Îranê, dikare di anîne ser kara desthilateke demokratîk û aştîxwazane di welatê me de gelek bibandor û di hemen demê de nirxeke zaf hebe.

Gişt nîşane derdixin holê ku bi hebûna dewleta Îranê û ew siyasetên ku peyrew dike, şans û bextê serketina berbipêşdeçûna pirojeya demokratîzekirina Rojhilata Navîn kêm e û heke hebe jî, nirx û bihayên madî û menewî yên serkevtina wê çend qat dibe... .

**Hevalên hêja!**

PDK Îranê di dema pêtir ji 60 sala ye ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd di çarçoveya Îranê de dixebite, wekî goriyê zindî yê terorîzmê, tevî mehkûmkirina vê pirsa dijî mirovî, hevdem xwe di eniya dijî terorê de dibîne û bi micidî piştgiriyê ji pêvajoya demokratîzekirina Rojhilata Navîn dike û amade ye di vî warî de berpirsyarane wezîfên xwe bimeşîne û şanazî û serbilindiyê dike ku mil bi milê welatên demokrat ji bo bidestveanîn û cihgirkirina demokrasiyê û civaka sivîl û vekirî bixebite.!

Ev rewşa cehnemî û tarî ku Komara Îslamî pêk aniye û nerazîbûna berdewam ya xelkê Îranê dijî sîstema ewlekarî – leşkerî ya Ehmedînejad, ji bo gihîştin bi azadî, demokrasî û sekolarîzmê hewcehî bi piştgiriya we ji xelkê azadîxwaz yê Îranê bi giştî û nemaze gelê Kurd dike, hevcehiyeke pêwîst ku hêjayî vê çendê ye bi kiryar gav jê re bihên avêtin, çunkî xelkê Îranê bi giştî û neteweya Kurd di Îranê de hewl û xebatên we ji bo anîne ser kara desthilateke demokratîk û aştîxwazane li Îranê û Efxanistanê, piştî nemana desthilatên dîktator, bilind dinirxîne û bi vê hêviyê lê dinêre.

**Serkevtin ji bo me ye.**

**Her bijîn.**

## Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê Li Amerîkayê Beşdariya Konferansa "KNC"yê Kir




Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, roja pêncşem 30.05.2006'an, di konferansekê de ku Kongireya Neteweyî ya Kurd (KNC) bi hevkariya Kongireya Nasiyonalîstên Îranê, Rêxistina Çevdêr ya Mafê Mirovan ya Kurd û Enistîtûya Kurd li Waşingtonê li jêr navê "rêyek ji bo demokrasî û mafên siyasî û mirovî di Îranê de" pêk anîbû, beşdarî kir.

Di konferansa han de ku çendîn kesayetiyên siyasî û çalakên bi nav û deng ên Kurd tê de beşdar bûn, di destpêkê de birêz Dr. Kemal Artîn, berpirsiyarê deftera "KNC"yê bernameya karê konferansê ragihand û piştre xatûna Sureya Sîracedîn, cîgira berpirsê deftera han xêr hatin ji mêvanan kir.

Di pişka xwandina gotaran de Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û birêz Ebdula Muhtedî Sekreterê Giştî yê Komeleya Şoreşvan ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê gotarên xwe pêşkêş kirin. Piştre dormêzek bi beşdariya kesayetiyên ku navê wan li jêr tê hate lidarxistin:

- Dr. Kemal Artîn, birêveberê panelê û Serokê Deftera "KNC"yê.
- Xatûn Katrîn Purtêr, Serokê Civata Mafê Mirovan.
- Dr. Perî Qeredaxî, parêzvana mafê mirovan.
- Xatûn Mandana Zendkerîmî, Seroka Jinên Yekbûyî.
- Dr. Roya Tilûî, Seroka Rêxistina Berevanî ji Mafê Jinên Kurd li Îranê û sernivîskara Kovara "RASAN"ê li Sine, ji aliyê beşdarên dormêzê bersiva pirsyaran da.

Di pareke din ya konferansê de Xatûn Semîra Qeredaxî nameya Şîlan Mihemedî, li ser rewşa koçberên Kurd li Turkiyê de xwend.

Konferansa han piştî bêhnvedanekê karê xwe bi birêvebirina dormêzeke din li ser "rola kêmaniyên neteweyî di pêkhateya pêşeroja Îranê de" domand. Di wê dormêzê de hin kesayetî ku di jêr de navê wan hatiye, beşdar bûn:

- Dr. Necmedîn Kerîm, Serokê Enistîtûya Kurd li Waşingtonê û birêveberê dormêzê.
- Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê.
- Birêz Ebdula Muhtedî, Sekretrê Giştî yê Komeleya Şoreşvan ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê.
- Birêz Elîreza Nezmîefşar, ji Komîsyona Dîplomasiya Azerbaycanê .

Piştre birêz Andriyo Postolo, çalak û nivîskar di warê Rojhilata Navîn de, li ser "Kêmanî û bêtirkirin rewşa hundirê Îranê" de, basek pêşkêş kir û li dawiyê de serokê konferasnsê daxuyaniya dawiyê ragihand.

# Deqa Axavtina Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê, Hêja Mistefa Hicrî Di "Senate"a Amerîkayê De

**Gelî birêzan!**
Heke di destpêka hatine ser kara Rejîma Komara Îslamî a Îranê di sala 1357 (1979)'an de, rayedarên Balyozxaneya Amerîka bo dema 444 rojan bi dûr ji hemû urf û qanûneke navneteweyî rehînên destê vê rejîmê bûn, niha eva pêtir ji 27 sala ye ku piraniya herî zaf ya xelkê Îranê rehînê destê vê rejîmê ne.

Di vê navberê de, jin, rojnamevan û azadîxwaz bi giştî û gelên bindest yên Îranê bi taybetî di nava van rehîngirtinane de, di bin zext û tund û tûjiyeke pitir de ne. Sedemên zaf û eşkere yên vê tund û tûjiyê jî bo bingeha nêrîn û îdeolojiya Îslamî a "Welayeta Mutleqe ya Feqîh" vedigere ku taybet bi Komara Îslamî ya Îranê ye. Di qanûnên Îslamî ên "Welayeta Feqîh" û Îslamê de, jin wekî miroveke pile du bi fermî hatiye nas kirin. Baskirin ji azadî û demokrasiyê di rêza maytêkirin di hukm û rêbazên Xwedê tê hesibandin û cezayeke giran jî heye. Bas ji mafên siyasî ên neteweyî jî di pêvajoya parvekirin û di encam de jarkirina Îslamê wekî takeyekê tê hesibandin. Lewra daxwaza mafên neteweyî muhra cudahîxwazî li Îranê û di encam de kompolya Amerîka û Îsraîl û hwd ji bo jarkirina vê daxwaziyê jê tê dayîn û bi awayekî hovane tê tepeser kirin.

Hetanî niha bi hezaran kes ji xebatkarên mafxwaz yên Kurd, Azerî, Ereb, Belûç û Turkmen bi van tawan û gunehane ji cih û warê xwe hatine dûrxistin û dest bi ser heyîna wan hatiye girtin, hatine heps û zîndanîkirin û heta hatine daliqandin. Di vê derheqê de û di meşandina vê polîtîkê de em dê Kurdan wekî mînak bînin.

PDK Îranê ku birêveberê tevgera demokrasîxwaz ya Kurda ye, hetanî niha du Sekreterên Giştî yên vê partiyê li Viyenê di sala 1368 (1989)'an de li dema gotûbêj tevî dîplomatên Komara Îslamî û di sala 1371 (1992)'an de li Berlînê bi destê kirêgirtiyên rejîmê hatin teror kirin. Dadgehek ku piştî terora Berlînê ji bo vekolîn kirin li ser vê tawanê pêk hat, Komara Îslamî di asta herî jor a desthilatê de bi gunehbar zanî û cuda ji vê çendê, bi sedan kes ji xebatkarên vê partiyê û rêxistinên din yên siyasî ên Kurd li Îranê û derveyî Îranê bi komployên Rejîma Îslamî a Îranê hatine teror kirin.

Kuştina pêtirî 10 kesan û birîndarkirina dehan kesên din di meş û xwenîşandanan de, pir caran di Îranê de yê derketiye holê û zaf nimûneyên din ji van riftar û kiryarane bi xelkê re rojane di welatê me de diqewimin.

Hemû evane serbarê jiyana tejî ji bêparî, betalî, bêkarî û îtiyada berfireh bi madeyên sirker e ku roj bo rojê di halê xurtbûnê de ye û bêhêvîtî û nesaxiyên cur bi cur ên pisîkolojîkî ku taybet di nava ciwanan de ye. Eva gelek bi kurt û kinî rewşa giştî ya xelkê Îranê ye. Tevahiya vê rewşa nexweş ji hêla komeke gelek biçûk ku xwe dayne sepandin û gişt desthilat bi destve girtine, pêk hatiye. Yanî weke me bas kir hemû xelkê Îranê û dahat û saman û heyînên giştî rehînê destê vê komê ne.




Di warê navneteweyî ve rewş ji bo we hêjayan re rontir e:
Maytêkirin di kar û barên hundir yê welatan, alîkarîkirin tevî pêvajoya tund û tûjî û şîdetê li Filistînê û welatên din yên cîran û bi taybetî di van çend salên dawiyê de li Îraqê, siyaseta eşkere û eyan ya rejîmê pêk tîne. Piştevaniya bê vira û wira ji terorîzmê û di encam de pirsgirêka Vejena Etomî ya vî welatî aştiya di Rojhilata Navîn de aloz û tevlîhev kiriye û roj bo rojê tirsên wê ji bo civaka navneteweyî rontir derdikevin holê, di vê derheqê de axavtina roja sêşem, 11'ê Avrîlê ya Mehmûd Ehmedînejadê Serok Komar, dunya ji vê yekê hesand ku vê rejîmê kariye Uraniyûmê zengîn bike û me guman tune ku armanca dawînya rejîmê ji projekta xwe ya Etomî bidestxistina çekên Etomî ye.

Eva ku bi kurtî me bas kir, siyaseta bê lêre û wira ya Komara Îslamî a Îranê bûye û her wisan jî dê bidome. Lê di hemû rewşekê de bi awayekê dimeşîne û dibe pêş ku jê re kêmxerctir û hêsantir be. Bi vê wateyê ku Îran li ser gihîştin bi stratejiya xwe mikum e û bi tu terzekê lê paşde nakişe. Ya ku cihê basê ye, tenê taktîkên rejîmê ne. Heke ji destpêka bi desthilat gihîştina vê rejîmê hetanî niha me şîroveyeke dahûrandî li ser kiryar û siyasetên rejîmê li hundir û derve hebe, ev rastiye bi başî ji me re eşkere dibe. Dewrana destpêka hatine ser şola rejîmê, şerê 8 salî yê Îranê û Îraqê, bi anîne hola girûpekê bi navê Reformîst, nimayîşên hilbijartinên binav Parlemanê û Serok Komariyê û aqibet diyarîkirina Ehmedînejad bo Serkomariyê û dewleta leşkerî û ewlekarî a wî û hwd ... hemû qonaxê taktîkî ên vê rejîmê ne.

Pirsgirêka sereke ya dunya û parek ji xelkê Îranê – niha ev beşe gelek yê kêm bûye – di vê çendê de ye ku hetanî niha ev rejîme nas nekirine. Sedema herî girîng a vê nenaskirinê jî durûyîkirina vê rejîmê wekî siyaseteke giştî ji bo derve û hundir bi merema xapandina xelkê bûye. Durûyîkirin ji bo serokên vê rejîmê ne tenê her eyb û îrad nine, belkî di warê ayînî de hewce ye. Ji bo rastiya vê gotinê her eva bes e ku ji bo dema hefteyekê li ser mijareke girîng – weke pirojeya Etomî – guhdariya gotinên serokên rejîmê bikin. Em eşkere dibînin ku her yek ji wan tiştekê dibêje ku tevî yên din cuda û nateba ye, eva jî çi ji xwe û nêrîn û dîtinên takekes jî nine. Belkî siyaseteke diyarîkirî ji aliyê desthilatdariya bilind ya welat, "Welayeta Feqîh", bi armanca xapandina cîhanê ye.

**Gelê birêzan!**
Eva rastiya kakila rejîma Komara Îslamî ya Îranê ye, rastiyeke tal, lê heyî, ku bi sedema şaşiya me xelkê Îranê ji destpêkê ve bi piştgiriya Ewropiyan û heta alîkariya vê rejîmê bi merema bidestveanîna bidestxistiyên bazirganî ji aliyê Ewropiyan gihîştiye vira.

Niha du rê li hember cîhanê ji bo berbirûbûn tevî vê rejîma Dêw de hene:
Rêya yekemîn lihevkirin û nermlivîn bi vê rejîmê re ye, her bi vî awayê ku hetanî niha hatiye kirin, encama vê hilbijartinê Komara Îslamiyeke xwedî çekên Etomî, Rojhilata Navîneke tevlîhev û aloz û pir fitnetir ji niha û rewşeke nebaştir ji bo mafê mirovan li Îranê û xurtbûna herçiqas pêtir ya daxwaza cudahiya neteweyên Îranê lê dikeve. Ji bilî vê yekê, ev halete tê wateya teslîmbûna bê vira û wir ya dunyayê bi destê terorîzmê.

Rêya duyemîn ji holê rakirina Komara Îslamî bo yekcarî û serbestbûn ji destê vê rejîmê ye ku encama wê dibe sedema alîkarîkirin tevî pêvajoya demokrasiyê û

piştgiriya xurt û kemilî ya mafên mirovan di Îranê de.

Ji nav çûna piştevanê herî bihêz û mezin yê terorîzmê li cîhanê û bi taybet di herêmê de, çareserkirina pirsgirêka Filistîn û Îsraîlê û cihgîrbûna ewlehiyê li Îraqê û cihên din yên deverê.

Ji bo gihîştin bi vê armancê, li berahiyê de hewce ye civaka navneteweyî û nemaze Rojava yekdest û yekgirtî be. Çunkî rejîmê mifaheke gelek zaf ji cudahiya nêrîn û dîtinan di navbera Ewropayiyan û Amerîkayê wergirtiye. Arîkarê hêzên Opozîsyona demokrat ya Îranê li hundir û derve be. Di vê derbarê de hewce ye ez qala vê çendê bikim ku alîkarî dana neteweyên Îranê û yek ji wan Kurdan ji bo bidestveanîna mafê çarenivîsa xwe di Îranek hevgirtî ya demokratîk a federalî di pêşerojê de dikare liv û bizava herî mezin dijî rejîmê bi destê wan pêk bîne.

Nabe ji bîra me biçe ku awayê herî hêja û jêhatî yê desthilatdariyê di Îrana paş Komara Îslamî de, parvekirina desthilatê di navbera neteweyên Îranî di metoda federalîzmekê de dabîn dibe ku li ser bingeha coxrafî – neteweyî bihê avakirin. Neteweya Kurd û hemû gelên din yên bindest ên Îranê jî ji bo azadbûn ji çewisandin, zordarî û cudahîdananê ji metoda hikûmeteke wisan piştgiriyeke xurt dikin.

Bi kurtî berbipêşbirina pêvajoya demokratîzasyonê di herêmê de û rizgarbûna cîhanê ji tirsa terorîzm û paşverûyiyê, hewcehî bi hevgirtina civaka navneteweyî tevî neteweyên Îranê heye.

Em PDK Îranê, birêvebirê tevgera Kurd di Kurdistana Îranê de, xwe di vê eniyê de dibînin û em ji bo birêvebirina wezîfeya ser milê xwe di vê derheqê de amade ne.



# Civîna Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê Li Waşîngtonê

Êvariya roja yekşem, 14.03.1385(04.06.2006)’an, li zanîngeheke derdora Waşîngtonê de, birêz Mistefa Hicrî tevî endam û alîgirên PDK Îranê yên li Waşîngtonê de civiya.




Birêz Elî Qadirî berpirsyarê komîteya PDK Îranê li Waşîngtonê di destpêka civînê de bixêrhatina birêz Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û beşdarên civînê kir û li ser rewşa PDK Îranê, Kurdistanê û sefera birêz Hicrî bo Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê, daxwaza pêşkêşkirina gotarekê ji birêz Mistefa Hicrî kir.

Birêz Hicrî di destpêka axavtinên xwe de qala guhertinên ku di kongireya 13’an ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de pêkhatibûn kir ku guherîna dirûşma stratejîk a PDK Îranê û pejirandina ala Kurdistanê ji hemûyan balkêştir bûn.

Aliyeke din ya axavtina Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, vebûna Televîzyona “TISHK” û derbirîna keyfxweşiya xelkê Kurdistanê bi hinceta destpêbûna weşana wê televîzyonê bû. Her wiha daxwaza serkevtinê jê re xwest û tekez kir ku televîzyona “TISHK”, dê bibe televîzyonek ji bo berfirehkirin û şiyarkirina hesta neteweyî ya gelê Kurd û neteweyên din ên Îranê.

Kongireya Neteweyên Îrana Federal, girîngî û bandora wê li ser rewşa niha û pêşeroja Îranê, parek din ji axavtinên birêz Hicrî bûn ku tê de carek din li ser pêşengiya PDK Îranê bo pêkhatina Îraneke Federal tekez hate kirin.

Di hemen civînê de birêz Mistefa Hicrî li ser xalên jêrîn axivî û her yek ji wan ji beşdaran re da hûrandin:

1. Rewşa giştî ya Îranê û pîlanên nepenî yên rejîmê di siyaseta derveyî ya Komara Îslamî de.
2. Bernameya Etomî ya Îranê.
3. Siyasetên dijî gelî yên rejîmê bi dijî xelkê Kurdistanê.
4. Demokratîze kirin û damezrandina hikûmeteke federal, bi cihê komara Îslamî, tenê rêyek ji bo pêşîgirtin li arîşe û malwêraniyê.
5. Xebat bi dijî terorîzmê û cîgirkirina aştiyê li herêmê de.
6. Basek li ser rewşa Teşkîlata PDK Îranê.

Li gor edetê hemû civînan, di pişka dawiyê ya wê civîna 3 seetî de jî, bersiva pirsyarên beşdaran ji aliyê birêz Hicrî ve hate dan.

# Daxuyaniya Navenda 3’ê Ya Kurdistanê Bo Pezdarên Herêmên Deştebêl, Tirgewer Û Mirgewer

Bo agehdariya pezdarên gundên Şîvebêro, Dizeya Mirgewer, Xurasb, Jareva, Filkan, Qayêr, Bavan û Çiryava!

Li gor agehiyên gihîştî bi Navenda 3’ê ya Kurdistanê, rejîm midehek e hewil dide ku bi darêtina pîlan û komployên fitne û şerxwaziyê di navbera xelkê Kurdistanê, nemaze gundî û pezdaran de, arîşê û dubendiyê çê bike û di wê derheqê de jî karbidestên herêmî yên rejîmê karîne bi wegirtina ruşwetê û piştevaniya hin kesên berjewendîxwaz û savîlke heta qasekê serkevtî bin.

Navenda 3’ê ya Kurdistanê hemû pezdarên herêmên navhatî haydar dike ku parvekirina zozanan hetanî niha jî her li ser bingehê yasa û lihevkirinekê ye ku berê ji aliyê PDK Îranê hatiye danîn.

Lewra tu kesê mafê wê hindê nine li gor xarîteyên şeytanî yên rejîmê bixebite û destê xwe dirêjî zozanên gundên din bike. Navenda 3’ê ya Kurdistanê tev gundî û pezdarên herêmê ji bo birêvebirina qanûna zozanan ku berê ji aliyê PDK Îranê hatiye danîn, gazî dike.

Hêjayî gotinê ye ku her kesê ku wê yasayê bin pê bike, di pêşerojê de perpirsyar û bersivderê vê kiryara xwe ye.

**Partiya Demokrat Ya Kurdistana Îranê**
**Navenda 3’ê Ya Kurdistanê**
**19.13.1385(09.06.2006)**

## Li me biborin

Di hejmara 40’an ya Agirî, rûpela 4’an de, li hevpeyvîna birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê bi malpera kurdistanmedia.org re, şaşiyek teknîkî di bersîva Kekê Mistefa Hicrî de çê bibû ku em bi vî awayî serrast dikin:

..."Ew namane taybetî bûn û nedibûn bihên belav kirin, eva jî ku Dr. Nezmî Efşar weşandiye, karek nebaş û ne bi cî ye”.

**Tevî rêz û lêborîn ji xwendevanan**

**Desteya Nivîskar ya Agirî**

# Jinên Îranê Û Çawaniya Gihîştin Bi Mafên Wekheviyê

**Hemîd Muxtarî**

Jin tenê di civakekê de ku tê de kar bi awayekî wekhav hatibe parvekirin yanî civakek pir ji dad û hevahengiyê ye ku jin dikare tê de xwediyê mafên wekheviyê be û di rastî de azad be".
**"Eliksander Takuluntay"**

Heta vê demê ku jin bi tevahî di berhemanîna civakî de beşdar nebe û herwiha guhertin di pêkhateya malbatî ya îroyî de pêk nehê, jin nikarin bigihîjne wekheviyeke kemilî. Pêkhateya malbatî û rewşt û tîtalên civakê û dewletê bandoreke girîng li ser diyarîkirina rola jinê di vê civakê de heye.

Jin di Îranê de ji aliyekê barê giran yê berpirsiyariya kar û şolên nav malê li stû digre û ji aliyê din û her di vê demê de jî di berhemanîna civakî de di astekê nizimtir de ne.

Eliksander Takuluntay dibêje: "Azadiya jinê tenê pêkanîna civakekê ye ku tê de berpirsiyariya ji nû ve berhemanînê û xwedî kirina pêkhateyên civakê bi hev re bihên encam dan, ne bi awayekî taybetî. Çimku di rastî de eva ku di şirovekirina jinan de roleke girîng heye, sedebên aborî ne û ferq û cudahiyên cinsî û regezî di vê pêvajoyê de di pileya duyemîn de ne. Tenê ji nav birina van sedemên aborî ye ku dikare bandorê li ser rewşa civakî ya wan hebe û guhertinê tê de pêk bîne. Bi wateyeke din, jin tenê di cîhanekê ku bingeha wê li ser sîtemeke nû ya civakî û berhemanînê hatibe damezirandin, yanî civakeke demokratîk û sosyal dikarin bibin xwediyê mafên xwe".

Mixabin Komara Îslamî di Îranê de rêyê nade jinan ku di berhemanîna civakî de pişikdar be, belkî ew ji hemû mafên mirovî, siyasî, aborî, civakî, çandî û wd ... bêpar kiriye û bi pejirandina qanûna bingehîn ya xwe ne tenê mafê qorixkirina milk û malê jinan, belkî mafê zalbûna sincî û cendekî ya jinan jî di çarçoveya desthilata mêr de daniye û heta jin ji mafê welatîbûnê ji bo vê çendê ku bikare dengê xwe di berevanî kirin ji berjewendiyên xwe bilind bike, bêpar e.

Divêt were gotin ku di Îranê de ev cudahîdanane tenê jinan bi xwe ve nagire, belkî hemû tex û qatên vî welatî weke mamosta, xwendkar, zarok, perestar û bi giştî hemû neteweyên Îranê tenê seba vê yekê ku piştevanê îdeolojiya vê rejîmê ninin û xwazyarê dabînbûna mafên mirovî yên xwe ne, ketine ber zext û êrîşan.

Bi xweşî ve îro rojê jinên Îranî tevî mafê xwe nasyar bûne û di tevgerekê di pêşde diyarkirî de mil bi milê çîn û qatên din yên civaka Îranê xebata xwe bi dijî vê rejîmê didomînin, û hemû çîn û taxên Îranê bi hevçeperên xwe dizanin û ji bo pêşerojeke baştir xebatê dikin, û her mafekê ku ew bi dest ve bînin, wan gavekê ji bo gihîştin bi armanca diyarî kirî anku bidestveanîna demokrasiyê û azadbûneke kemilî nêzîk dike.



**Xebata jinan li Îranê ji bo bidestxistina mafên mirovî ên xwe berdevam e, lê desthilatê ew bê bersiv hêlane.**

Rejîma desthilatdar ya Îranê xwastekên hemû civatên xelkê Îranê bin pê kiriye û ew ji hemû xweşî û rihetiyên jiyanê bêpar kirine. Helbat jin du hemberî çîn û qatên din yên civaka Îranê ketine ber ferq û cudahiyan.

Di dawiyê de hewce ye were gotin ku jinên Îranê ji bo pêşvebirina xwastekên demokratîk yên xwe weke mafê zewicînê, mafê ji hev veqetiyana wekhev, mafê karkirinê, ji nav birina ferq û cudahiyên zayendî, zêdekirina temenê zewicînê û bi kurtî mafê pişikdarbûn di nava hemû warên siyasî, aborî, civakî, çandî û wd ... , divêt jin derkevin nava refên xebatkarên rêya azadiyê û hemû çîn û qatên zehmetkêş, ronakbîr, demokrat, şoreşger û hemû gelên Îranê bi keç û kur, pîr û law, jin û mêr bi dijî rejîma paşverû û dijî mirovî ya Îranê hevreng û hevdeng bin.

## Berlêgirtin Ji Xwendinê

### Bû Sedema Xwekuştina Keçekê Li Kamyaranê

Li gor nûçeya Rêxistina Mafên Mirovan li Kurdistanê, keçeke 15 salî bi navê **Gulser. M**, xelkê gundê "Tengeser" a Kamyaranê agir berda xwe û xwe kuşt. Sedema bingehîn ya vê xwekuştinê berlêgirtin ji navhatî ji bo domandina xwendinê bûye.

Hêjayî gotinê ye ku Kamyaran yek ji wan bajarên Kurdistana Îranê ye ku hejmarên xwekuştinê bi awayekî berfireh tê de zêde bûye.

## Xweşewitandina Jinên Kurd Li Kurdistanê her berdewam e

Li go nûçeya Rêxistina Mafên Mirovan li Kurdistanê, roja sêşem, 06.06.2006'an, jinek bi navê **Feranek. K**, xelkê gundê "Çapan" ya Seqizê, agir berda xwe û bi sedema dijwarbûna birînên xwe di nexweşxaneya bajarê Sine de jiyana xwe ji dest da. Her wiha jineke 39 salî bi navê **Heyat. S** ku mêrê wê kedkar e û di malbateke feqîr û xizan de dijî, xwe daliqand. Tê gotin ku destkurtî û arîşe û nakokiyên malbatî sedemên bingehîn yên xwekuştina Heyatê bûne. Jineke din a Kurd jî bi navê **Şevbo**, xelkê gundê Mezîr a ser bi bajarê Pawe bi sedema rewşa nebaş ya aborî agir berda laşê xwe û xwe şewitand. Vê jinê ku xizanî û destkurtiya aborî jiyan jê tal û nexweş kiribû, bi sedema xurtbûna şewitînê wê du rojan berî niha jiyana xwe ji dest da.

## Li Mehabadê Jineke Kurd Tevî Metirsiya Îdamê Berbirû Ye

Jinek bi navê **Lîmo Îbrahîmî** xelkê Mehabadê ku bi sedema xizanî û desttengî û bêşoliyê bi naçarî di Çêldariyeke li derdora bajarê Hemedanê mijûlê kar bû, ji aliyê kurê xwediyê wî cihî tevî tecawiza namûsê rû bi rû dibe. Ji bo berevanî kirin ji xwe di navbera vê jinê û ciwanê tecewizker pevçûn çê dibe. Lîmo bi lêdana derbeyeke dar, wî bêhiş dike. Her wê demê mêrê wê jinê digihîje wir û wî ciwanî dikuje û piştre direve û Lîmo ji aliyê hêzên dewletê tê girtin.

Hêjayî gotinê ye ku ew jina zehmetkêş di girtîgeha Hemedanê da ye û tevî tirsa îdamê berengar e.

**Çavkanî: RMMK.org**

**Hunermendê Dengxweş Kazo, Di Hevpeyvîneke Taybet Bi Agirî Re:**

# "Hunermend Divêt Bîr Û Baweriya Gel Bin"

**Hevpeyvîn: Dara NATIQ**



**Hunermendê dengzelal Kazo, sala 1953'an li gundekî girêdayî bajarê Wanê, di malbateke bine huner de ku gelek jî dostê hunerê bûn û huner jî hez dikirin, hate dinê.**

**Bav û kalê Kazo jî tenbûrvan bûn, lê Kazo her di 10 saliya xwe de bi piştgiriya kalê xwe tevlî cîhana hunerê bû û di zarokatiya xwe de bi civakê re hate nas kirin.**

**Hunermend Kazo sala 1976'an, di nava malbata xwe de Komekî hunerî bi navê Koma Şêrwan ava kir, Kazo bi Koma Şêrwan re heya niha 25 kasetên cur bi cur derxistine.**

**Li seredana hunermend Kazo ya vê dawiyê bo Kurdistana Başûr me bi hewce zanî ku derheq rewşa gelê me yê Bakûrê Kurdistanê di warê çandî de û armanca hatina wî bo Kurdistana Başûr û rewşa stiran û muzîka Kurdî bi giştî û wd ... wî hunermendê hêja û dengxweş bi vî awayî bînin axavtinê:**

**Hunermend Kazo, ez ji aliyê rojnameya Agirî ve bixêr hatina te bo nava şoreşvanên PDK Îranê, mekteba Qazî, Qasimlo û Şerefkendî dikim.**

**Kazo:** Ez jî gelek dilşad im ku îro xwe di nava şoreşvanên PDK Îranê de dibînim, bîranîna Qazî, Qasimlo û Şerefkendî bo min gelek pîroz e, ez hertim wan di helbestên xwe de dibêjim. Hêviya min yek jî ev bû ku ez di nava wan de cih bigirim, ev jî hate cî û ezê bi dilê rihet di goristanê de bimirim.

**Mamosta, em hez dikin di destpêkê de bizanin armanca te ji hatin bo Kurdistana azad çi bû?**

**Kazo:** Rast e du sebebên sereke hene: Yek ji wan, eva cara duyemîn e ku ez tême Başûra Kurdistanê, mixabin min hindekî dilêşî dîtin, ez çûm Helebçê jî, min konser dan, gelek hunermendên me jî Helebçe sitirîne, mixabin neçûne Helebçê û nesekinîne, derdê zor û zêcê Helebçê nepirsîne û ser goristana wan nesekinîne, her ji dûr ve Helebçe gotine, ez di vê demê ve heya niha bûme pêrekan ketime navbera Bakûr, Başûr, Rojhilat û Rojava. Ez li Kurdistana Rojhilat ve hatme deriyê Hacî Omeran, bes min tu ferq û cudabûn nexiste navbera partiyan, partî çi bibe bila bibe, hemû partiyên me ne, diviya partî cuda bifikirin, lê hunermend diviya yek bin, bîr û baweriya gel bin. Daxwaziya min ya herî mezin ewa ye ku ez girêdayî gel bim û gelan bigehînme hev. Di wê demê de xemgîn bûm, lê baweriyek min hebû ku gelê me bi taybetî bibe yek û bîr û baweriya xwe pêşve bibe, sebeb vê carê jî eva ye ku Kurdistanekî azad û federal hatiye ava kirin. Mebesta min ya herî mezin vê carê, min got ez biçim ku eceba rewş û remza Kurdistanê çî ye û di Kurdistana me da çi guhartin çê bûne?! Dîtina gel, danûstandina bi gel re û gel bo me girîng e. Gel zaf Kazoyan diafirîne, lê Kazo nikare gel biafirîne, ji ber vê, ez dibêjim diviya partî rengê xwe biguherîne, dengê xwe biguherîne, ema Kazo rengê xwe û dengê xwe naguherîne, ji ber ku Kazo reng û dengê gel e.

**Li gor dîtina te, Kurdistana Başûr di vê heyema derbasbûyî de li warê muzîk û strana Kurdî de heya çi qasî pêş ketiye?**

**Kazo:** Erê, di warê çandî de pêşketinên baş bi xwe ve girtiye, lê mixabin hindek leystikên neyara dîsan li ser me herdem ku çê dibin, vê gavê jî çê dibin, hem di warê muzîkê de jî wisan e, belkî muzîka derdora xwe em gelek jê hez dikin, bi taybetî eger em bingeha xwe negirin, emê gelek tûşî xeteran bin û emê ziman û peyvên xwe yên Kurdî jî winda bikin. Li gorî 3 sal berî niha ez dikarim bibêjim, Kurdistan 30 salan pêşve çûye.

Hem di warê stiran û muzîkê û hem jî di warê teknolojî û zanistê ve zaf pêş ketiye. Tiştekî xirab ku ez li vir dibînim di nava muzîkê de, ciwanên me yên ku taze pêdigehin, ji kerema xwe bila tama Kurdî di helbestên xwe de berçav bigirin.

**"EZ PÊŞEROJA MUZÎK Û STRANA KURDÎ Lİ BAKÛRÊ KURDİSTANÊ BAŞ DİBÎNİM"**

**Mamosta Kazim, em hez dikin bizanin rewşa gelê me li Kurdistana Bakûr bi xasmanî di warê çand û muzîka Kurdî de çawa ye? Gelo gelê me heya çi qasî di vî warî de serbest e?**

**Kazo:** Pirseke gelek bicî bû. Belkî di Kurdistana Başûr hindekî şansê wan heye ku vê gavê serbest in û heya vê demê ku di nava Ereban de jî bûn, li Radyo û Televîzyonan de dikarîn çand û zimanê xwe biparêzin. Mixabin li Bakûr tiştên wisan tune bûn. Di hemû hêlan de dengê gelê Kurd hatibû birîn, heta xwe nas nedikirin, rewşa îro ku em derdikevin li ser vê bingehê pêş ketiye, rast e îro dema em mêzeyî çand û muzîka Kurdan li bakûr dikin, li dema bizav û serhildanên Kurdan heya îro di hemû qadan de pêşve çûye, hunermendên me yên Bakûr baş hev girtine. Ez di pêşerojê de jî baş dibînim û baweriya min ew e ku serkêşiya muzîka dunyayê jî, Kurdan kiriye.

**Tu derheq tevlîhav bûna muzîk û stiranên Kurdî û Turkî li Bakûra Kurdistanê çi dibêjî?**

**Kazo:** Raste, wexta mirov bû cîranê hev, bixwaze ya nexwaze hin tiştan ji

hev werdigire û dide hev jî. Hin caran di warê muzîkê de jî dan û standin û guhertin çê dibin, lê tevlîhevbûna ku tu tînî ziman, di herêma coxrafiya Kurdistanê de tiştekî taybet bi xwe heye, Kurdan hunera xwe pêşkêşî tev aliyên cîhanê kiriye, em dikarin vê çendê bi zanistî jî bidne xuya kirin. Cara yekem dibistana zanîngehê li qezaya Orfayê hatiye damezirandin. Me Kurdan îlm bi zanistî daye dunyayê, lê neyaran li ser me giran kirin, îro miletê Kurd li çar parçeyan de hatiye parve kirin. Asimîle bi ser wan de hate kirin, neyaran dengê wan bi zimanê xwe re guhartin. Lê dîsan jî serbarê hemû wan dijwariyane gelê me çanda xwe winda nekiriye û hertim neyaran muzîk û zimanê me ji xwe re dizîne.

## "MUZÎKA ME HÊJ GELEK Lİ CÎHANÊ DÛR Û PAŞ E"

**Ii gor dîtina te stiran û muzîka Kurdî bi giştî heya çi qaseke pêş ketiye?**

**Kazo:** Bi giştî di her çar parçan de dema mirov mêzeyî herêma Kurdistanê dike, hêşta em nikarin bibêjin ku em gihîştine qada navneteweyî an jî di qadekî hîn nêzîkî wê de jî ne, ji ber ku wî curê hewce, em di nava cîhanê de ne diyar in. Diviya hêzekî mezin û li ser warê muzîkê bi xebatekî herî giştî û neteweyî bihê avakirin, ev car em xwe di nava cîhanê de bidin pejirandin. Mixabin me hêşta xwe nedaye qebûl kirin, muzîka me jî hêj gelek li cîhanê dûr e, eva rastiyeke û diviya em vê rastiyê jî bibînin. Eva jî nahê vê manê ku em negehinê, ji ber ku emê bigehinê û jê derbas jî bibin.

**Mamosta tu di stiranên xwe de zaf basa şoreş û serpêhatiyên dîrokî yên Kurdan, rêber û gernasên Kurda dikî, merema te ji gotina wan serpêhatiyan çî ye?**

**Kazo:** Eva cara yekemîn e ku ev pirse ji min tê kirin, em ji te pîroz dikin. Armanca min di naveroka stiranê ewa ye ku ev xweşiya ku em îro dibînin, em yê pêşiya xwe bîr dikin, ji ber vê çendê ku zarokên me bizanin ku gelê Kurd li çi rêyekê de hatiye, neyaran çi kiriye, rêberan çiqas canê xwe ji dest dane, kê di vê rêyê de xebat kiriye, û herwiha rêber û rênasên gelê Kurd em ji bîr nekin, da em ji nifşa pêşerojê re bidne xuya kirin ku bizanibin em bi çi zehmet û zoriyekê hatine. Ji ber ku ez behsa rêber û cengewarên Kurdan dikim da ku em xwe di rêya wan de bibînin û keda wan winda nekin, wan bidin nas kirin heya ku di dîrokê de nehên winda kirin.




**Kazo heya çi qasî kariye xwedî bandor be li ser bizava rizgarîxwaz a gelê Kurd?**

**Kazo:** Gelek ciwan e, gelek rast û xweşik bû te anî ziman, wexta ku mirov temaşa dike bandora Kazo çiqas kete li ser rojeva hunera gelê Kurd û armanca wî gihîşte kîjan astê, her hunermendek daxwaza wî ev e ku bi gelê xwe re bihê naskirin. Ez bi nînikê xwe bi kuratî der ketim, min tu hêz û piştgirî ji tu kesî negirtiye, tenê min xwe û malbata xwe li ser îmkan û derfetên xwe, serê xwe danî rêya huner û zimanê gelê Kurd de, min ji bo tu partiyekê xebat nekiriye, vê bandorê ez nikarim bibêjim, gel divêt bibêje. Ez bawer im Kazo eger di rêza du yan çaran de nebe, di rêza dehan de ye. Di hemû herêmên Kurdistan û Ewropayê de Kazo îro bi kilasîka dengê kevnare xwe, bi gotinên şoreşvanî, bi helbest û stiranên xwe kariye bandoreke baş li ser ciwanan hebe û eva jî şanaziyekî herî mezin ji bo min e.

**Gelo te çi hestek heye ku di nava şoreşvanên PDK Îranê de yî û tu ji bo gelê me yê Rojhilata Kurdistanê çi dibêjî?**

**Kazo:** Daxwaziya min ev bû ez jî weke hunermendekî, her çend rola min ya hunermendî bû, lê di dilê min de Pêşmergayetî jî hebû, daxwaziya min dîtina Pêşmergan bû, dîtina şervanên azadîxwaz yên ku canê xwe didin û ber xwe didin û xwîna xwe dirêjînin ji bo azadiya gelê Kurd, helbete di vê şoreşê de me gelek bihayên giranqedir ji dest dane, lê bi xwîna wan şehîdên ku me ji dest dane, îro qada Pêşmergan di cîhanê de hatiye naskirin, bi taybetî ev ji me re gelek girîng e. Îro dewletên dagîrker gelek giraniya xwe dane ser hêzên Pêşmergan, bi taybetî Pêşmergeyên Qazî, Qasimlo û Şerefkendî di navbera du heb çiyayên teng de, neyaran bi dorê girtine, lê wan serê xwe nedanîne û xebat û partiya xwe berdewam dikin, îro di Ewropa, Asiya û Rûsiyayê de ez di hemû qadên cîhanê de digerim, ez dengê PDK Îranê dibihîzim û daxwaziya min yek jî ev bû ku ez di nava wan de cih bigirim, îro jî ev daxwaziya min hatiye cî û ez bawerim ev yek di jiyana min de yê cihekî xasmanî bi xwe re bigre. Ew Pêşmergeyên me yên ku li serê çiyayên bilind ji bo azadiya gelê Kurd jiyana xwe ji dest didin, em nabne toza Sola Şeqala wan. Hêvî û bîr û baweriya Kurdên cîhanê jî hûn in. Lewra ez gelek keyfxweşim di nava we de me û daxwazê ji gelê me yê Rojhilat dikim ku bi hemû hêz û qaweta xwe piştgiriyê ji partiya rastî a xwe PDK Îranê bikin.

**Çalakiyên we yên pêşerojê çi ne?**

**Kazo:** Belê, min heya niha 25 kaset derxistine, kaseta min ya herî dawî jî 3 sal berî niha derketiye. Di pêşerojeke nêzîk de jî ezê kaseta xwe ya nû bi Koma Şêrwan re bixim ber çavê evîndarên dengê Kazo.

**Mamosta Kazim, gelek sipas ku te dema xwe bi me re veqetand?**

**Kazo:** Zor sipas. Agirî çiyayekî bilind e, li ser vê jî stiranên min yên taybetî hene. Ew jî remz û nîşana gelê Kurd e. Ez jî rêz û hurmetên hunermend Kazo ji bo xwendevanên Rojnama Agirî re dişînim û gelek keyfxweş bûm û hertim ji bo wê serkevtinê, ji bo Kurdistanê azadî û ji bo Pêşmergeyan jî moralekî xweş û dilê şadî dixwazim.

## Pîrozbahî

Salek ji temenê xebat û xizmetên Televîzyona Kurdî a "Zagros"ê borî. "Zagros TV" serbarê savabûna xwe, karî ye gelek valahiyên ragihandina Kurdî derheq çand û zimanê Kurdî û ... tejî bike. Her wiha şiya ye ciheke jêhatî û bilind di nava gelê Kurdistanê de ji xwe re veke.

Em pîrozbahiyên xwe ên herî germ pêşkêşî xebatkarên vê "TV" ya Kurdî dikin û temen dirêjî




û serkevtinê di kar û xebata wan de hêvî dikin.

**Desteya Nivîskar ya Agirî**

# PERWERDEHÎ

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Perwerdehî, her çend ku di wateyeke teng de wekî geşepêdan û gihandina mirov an jî lewirên hoveber were dîtin jî dîsa bi serê xwe wateyeke wê ya xweser kûr û berfireh heye.

Wekî tê zanîn di nav hemû giyaneweran de heyînê herî gihîştî, kamil û kelbeng mirov e. Mirov, heyîneke civakî û komelayetî ye. Ji bo wê, bi qasî ku pêdiviya mirov bi xwarin, vexwarin, wergirtin, vehewîn, hengkirin, hengeme û hesîneyê heye, ew qasî jî pêdiviya wî/wê bi ragihandin, xwendin, perwerdehî û hîndekariyê heye. Nemaze jî perwerdehî...Çima nemaze perwerdehî ?

Divê ku em hinekî li ser vê pirsê rawestin û hinekî berfirehî li bersiva wê bigerin. Carekê perwerdehî, ji bo her mirovî/ê hewcedariyeke jênager û jiyanî ye. Çi civak an takekes dibe bila bibe, bi hemdê xwe an jî bê hemdê xwe, teqez di doman û heyamên perwerdehiyekê re derbas dibe. Perwerdehî domaneke wisa domdar e ku ji dayikbûna mirov bigir heta heta dawiya temenê wî/wê tevê jiyana mirov di nava xwe de digire. Ango mirov bi hêsayî dikare bibêje, tu mirov nîn e ku bi perwerwerdehiyê nasdar nebe. Çê dibe, xerab dibe, bêşik her kes bi awayekî di pergaleke perwerdehiyê re derbas dibe. Belê perwerdehiyeke çawa? An jî erk, rist û çawaniya perwerdehiyeke bi çi awayî? Ji bo çi û ji bo kê perwerdehî? Mirov li gora çi û di çi mercan de perwerde dibe?... Em dixwazin li gora van pirsan an jî di vê çarçoveyê de têgîna perwerdehiyê rave bikin û li ser hin arîşeyên wê yên giştî belê yên îroyîn û rojane rawestin.

Kesantiya takekes û civakê her gav li gora bîrdoz û armanca pergala rêveberiyê teşe digire. Lewre pergalên rêveberiyê her gav kesên di bin rêveberiya xwe de, li gorî dil û daxwaza xwe perwerde dike û digihîne. Her wiha her pergal, sazî û dezgehên xwe li gorî perjewendiyên xwe ava dike. Tu pergalên sazbûyî, destûr nadin ku tu takekes an civak bi vîna xwe tevbigere an li gorî daxwaz û armanca xwe perwerdehiya xwe pêk bîne. Wekî ku li jor jî hate diyarkirin, pêdiviyên mirov ên kirdewar(subjektîv) û heyberî (tişteyî) hemû bi saya hilberiyê bi dest dikevin. Çand, huner, ol, sinc, dab û nêrît, perwerdehî û hîndekarî û hwd. hemû li gorî pêwendiyên hilberiyê têne şêwandin. Girêdayî vê yekê, her sazûman û sazgehên giştî li gorî şêwaza hilberiya demê têne damezrandin. Belê hemû pergalên rêveberiyê jî li gorî amraz û pêwendiyên hilberiyê dirb û dirûv digirin.



Di mercên îroyîn de, tu pergalên rêveberiyê destûr nadin ku tu kes li derveyê bîrdoz û zagonên wan bi serê xwe sazî û sazgehên perwerdehiyê ava bikin. Hêçku perwerdehî pêdiviyeke civakî, mirovî û gerdûnî ye. Sazûman û civak çi dibe bila bibe, divê giringiyê bide perwerdehiya tekekes û civakê. Di her demê de mirovên perwerdekar, bandoreke pir mezin li ser rewşa aborî ya civakê dihêlin. Ji lewre perwerdehî, tenê ne xwendin, nivîsandin an jî çûna dibistanê û qedandina zanîngehê ye. Rol û erka perwerdehiyê, her wext û di her warî de xwe dide pêş. Ji karkeriya kargehên hilberînê bigirin heta gêzikvaniya şaredariyê, ji mamostetiyê bigirin heta şivantiya pez, ji hunerê bigirin heta xwarinpêjiyê, ji muzîkê bigirin heta şanogeriyê...ango tu tişt nîn e ku li devreyê perwerdehiyê hebûna xwe bikudine û xwe, xwe bi xwe têkûz bibe.

Îcar perwerdehiyeke çawa?

Mirov li ku dibe bila bibe, çi karî dike bila bike û di kîjan karî de dixebite bila bixebite, divê ku bi awayekî zaneyane were şerdekirin û perwerdekirin. Li devreyê vê, çi xebat û hewldanên ku têne kirin bêsûd û bêfeyde ne û bi avê de diçin. Ji bilî perwerdehiya zanistî tu kes nikare bi awayekî erênî xwe perwerde bike. Û bêyê perwerdehiyê jî ne tu kes dikare sûdê bide tiştekî û ne jî dikare ji tiştekî sûdê werbigire. Belê perwerdehiya zanistî çi ye, divê ku em hinekî li ser vê yekê rawestin.

Perwerdehiya zanistî ew e ku zanîn, hunerwerî û behremendiyên mirov li gora merc û derfetên demê digihîne radeya herî bilind û asta şarezabûnê. Ji bo çareserkirina pirsgirêkên heyî, hemû merc û derfetên erênî seferber dike û diceribîne. Perwerdehiya zanistî, ne bi rêbaz, zagon û qedexeyên rojane; ew bi têkilî, rêzdarî û hezkirinên ji dil û can û liv û bizavên mirovane vediguherîne. Di perwerdehiya zanistî de pêdivî qet bi qedexe, zagon û rêbazên tund û dijwar nîne. Perwerdehiya zanistî hemû pirsgirêkên takekes û civakê di pêwendiya sedem û encamê de dinirxîne.

Li gorî nêrîn û şêwaza perwerdehiya zanistî, mirov her tişt e. Her tişt ji bo mirov û di suxreya mirov de ye. Mirov her gav wekî navend û hilika her tişt û her nirxî tê dîtin. Li gorî perwerdehiya zanistî, xebat û hewldanên erênî hemû ji bo mirov in. Û alav û ambûrên zanînê tev di suxreya mirov de têne xebitandin.

Kaniya Helbestan

**Letîf Epozdemir**

## PENABER

Loman neke
Tenêbûna min
Penaber e
Min ji
Pincara welatê min bipirse
Ji binevş û hinaran...

Ew qedrê min dizanin
Niha li vir li vira,
Min didin ber kevira,
Ev bajêr
Hemû li min
Li hev hat û civiya
Derê xwe li min girtin
Ez mame wek sêwiya.

Min tenêbûna xwe
Veşartî hişt di dil da
Destê biratiyê dirêj dikim
Ku çinarên me bira ne
Çîçekên me cinar in.

Lê ew min nabînin
Hêza min jî, bêkes ma
Ez jî mame penaber
Bê hez dil sitar nake
Jiyan wiha naçe ser.

## SERDARÊ DİL

Bi xêr hatî serdarê dilê pîr
were rûnê li pencerê
ber camê
temaşe ke li şevê
kolan îşev betal in.
ji bo me fersendek çê.
were tu siltana dil
guh bide dengê bilbil
cerg birîndar bi derba tîr
tu bi pêçe bi destên jîr
ez im bo te dilşewat
xwîn dirjin ji çavê min
tu yî şahê dilê min
Were rûnê eywanê
bikevin em seyranê

## BÊJE ZALİM

Bêje zalim tu niyetê
Evîna dil ji bo kî tê
Ku ne ez bim li vê dinê
Kî ji te re dike qametê.

Were bi tîra min nekuje
Navêje ber piyê neyar
Va çand sal e sedem tu yî
Ku dilê min maye beyar.

Were rayê êdî bese
Ezê bi te bikim îman
Ji bona birîna hinav
Bibe tu merhem û derman.

De rûneyne li ber camê
Pora guzvan ne de bayê
Li jorê be li eywanê
Dilê hesûd pê êşayê.

Ax rebiyo çiye me sûç
Çima ewqas cewr û cefa
Ma nabînim tenê rojek
Dilek hêsa kef û sefa.

**Çeprast:**
1. Ew wekî remza Helebçê hatiye naskirin.
2. Navê keça ye – Kepr di Soranî de.
3. Berevajî navê lîstikvanekî bi nav û deng ê Îranê ye – Têgihîştin di Turkî de.
5. Di nava laşê her kesî de heye – Navê nexweşiyekê ye.
6. Heke **D** bihê zêdekirin, kurtkiriya Sindoqa Navneteweyî a Geşandina Cotkariyê a NY ye – Kurtkiriya destepeyva rêvebirina kar û barên siyasî ye.
8. Navê giravekê ye li Yûnanistanê – Di çiya de şîn dibe û tê xwarin.
9. Berevajî di Soranî de tê wateya Renî – Hekî **G** bihê zêdekirin, navê serdarekî Mad bû.
10. Ew pêşewayê Silsileya Îsmaîliye bû û bi dijî Selcûqiyan şer dikir, binkeya wê jî Kela Elemût bû.

**Serjêr:**
1. Navê rêzefîlmeke Japonî bû – Berevajî navê golekî bi nav û deng e li Amerîkaya Bakûr de.
2. Mezin – Kurtkiriya îdareya rêveberiyê a NY – Hekî **P** bihê zêdekirin, navê gulekê ye.
3. Navê ferhengokeke Farsî ye – Berevajî wê nav û dengê Îmameke mezin ê Şîî di Lubnanê de bû.
4. **Raya min** di Soranî de – Bilêvkirina tîpa **H** di Kurmancî de – Berevajî tê wateya **Erd** di Soranî de.
5. Yek ji Firewnên mezin di Mîsrê de bû.
6. **Wek** di Farsî de – **Ey** di Erebî de – Cure xalyek e.
7. Navê bajarekî Kurdistanê ye – **Em** di Soranî de.
8. **Tirs** di Farsî de – Berevajî tê wateya **dît** – Berevajî di Soranî de tê wateya **car**.
9. Berevajî tê wateya mal(Bi devoka Hewlêriyan) – Heke **H** bihê zêde kirin, navê partiyekê ye – Bav bi Turkî.
10. Teb di Kurdî de – Heke ev peyva bihê ducarî kirin, zaraveke Kurdî ye – Koma Se.

# Xaçepirs

Amadekar: Şehab Xalidî

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | (6) | | ■ |
| 2 | | | | | ■ | | | | | |
| 3 | | (2) | | | ■ | | | | (3) | |
| 4 | | ■ | | ■ | | ■ | ■ | ■ | ■ | ■ |
| 5 | ■ | | ■ | | | (5) | ■ | | | |
| 6 | ■ | | ■ | (4) | | | ■ | | | |
| 7 | | ■ | | ■ | | ■ | ■ | ■ | ■ | ■ |
| 8 | | (1) | | | ■ | | | | | |
| 9 | | | | | ■ | | | | | |
| 10 | | | | | | | | | | ■ |

Peyva veşartî ○1 ○2 ○3 ○4 ○5 ○6

## Bersiva Xaçepirsa Hejmara 40'an

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | Q | ■ | H | A | G | A | N | E | ■ | J |
| 2 | E | K | ■ | H | I | R | Ç | ■ | R | A (1) |
| 3 | D | A | N | ■ | ■ | ■ | ■ | N | E | K |
| 4 | E | R | ■ | B | A | N | E | ■ | Z | A |
| 5 | M | A | ■ | E | Y | A | L | ■ | Y | N |
| 6 | X | Î (4) | Ş (2) | ■ | A | T (3) | ■ | B | A | T |
| 7 | Ê | R | ■ | E | R | O | N | ■ | N | I |
| 8 | R | ■ | S | W | ■ | ■ | E | Y | ■ | N |
| 9 | ■ | A | ■ | A | Z | A | D | ■ | O | ■ |
| 10 | ■ | R | U | M | Û | H | Y | U | N | ■ |

Peyva veşartî: A(1) Ş(2) T(3) Î(4)

# Sudoku

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 3 | | 1 | | | | | | 2 |
| | | | 7 | 2 | 4 | | | |
| | | | 9 | | | | | 6 |
| | 1 | | | 6 | | 3 | 2 | |
| | 8 | | 2 | | 9 | | 1 | |
| | 4 | 6 | | 7 | | | 5 | |
| 9 | | | | | 2 | | | |
| | | | 8 | 1 | 6 | | | |
| 1 | | | | | | 2 | | 3 |

**Xwendevanên hêja!**
**Ji bo serrast kirina "Sudoku" wan xalên jêrîn li berçav bigirin**

1. **Hejmarên 1-9'ê di rêza serjêr de dubare nabin.**
2. **Hejmarên 1-9'ê di rêza çeprast de dubare nabin.**
3. **Hejmarên 1-9'ê di nava stûneke 3×3 de dubare nabin.**

## Bersiva Sudoku a Hejmara 40'an

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | 5 | 3 | 8 | 2 | 7 | 4 | 6 | 9 |
| 6 | 4 | 2 | 1 | 5 | 9 | 8 | 7 | 3 |
| 7 | 8 | 9 | 6 | 3 | 4 | 1 | 2 | 5 |
| 9 | 6 | 7 | 4 | 1 | 8 | 3 | 5 | 2 |
| 4 | 1 | 5 | 3 | 6 | 2 | 9 | 8 | 7 |
| 2 | 3 | 8 | 9 | 7 | 5 | 6 | 4 | 1 |
| 5 | 9 | 6 | 2 | 4 | 1 | 7 | 3 | 8 |
| 3 | 2 | 1 | 7 | 8 | 6 | 5 | 9 | 4 |
| 8 | 7 | 4 | 5 | 9 | 3 | 2 | 1 | 6 |

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**

**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

# Kopaya Futolê Ya Cîhanî A 2006’an Bi Coşeke Germ Berdewam E

Hejdehemîn gera pêşbirkên Kopaya Futbolê ya Cîhanî a 2006’an roja 09.06.2006’an li Almanya dest pê bû û ji bo mehekê bala hemû evîndar û hezkerên Futbolê di cîhanê de bo aliyê xwe dikişîne. Di dema birêveçûna pêşbirkên vê Kopaya bi nav û deng ya cîhanî de bi dehan milyon kes li seranserî cîhanê bo dema mehekê mijûlê wê ne û bi coşeke germ dişopînin.



**Ji 32 taximên Kopaya 2006’an, kîjan dibe Şampiyon?**

Tevî vê çendê ku Federasiyona Futbolê ya Cîhanî di sala 1904’an hat avakirin, lê yekemîn Kopaya Cîhanî ya Futbolê 26 salan piştî wê, yanî di sala 1930’an de hate li darxistin.




Kopaya Futbolê ya Cîhanî a 2006’an gera hejdehemîn ya vê werzişê ye. Di Kopaya 2006’an de, taximên 32 welatan tê de beşdar in. Çend gerên Kopaya Futbolê ya Cîhanî, ji ber şerên cîhanî û bûyerên mezin yên dunyayê birêve neçûn.

---

## Zanist û Teknolojî

# Baştirîn Dije Vîrûsa Belaş

**Hamid Durûdî**




Ew kesên ku dixwazin Kompyutera xwe ji vîrûs û tiştên mirar û pîs wekî Torcan, Kirm û ... paqij bikin û naxwazin bona vê yekê jî tu dirav (pere)ekê bidin, dikarin ji dije vîrûsa belaş ya “**AVG Free Edition**” mifahê bistînin. Di bingeh de karkirda “**AVG Free Edition**” ji “**Grisoft**”ê dişibe ku ji aliyê Çekiyan ve hatiye çê kirin û belaş û bê pere ye.

Hêjayî gotinê ye “**Virus Bulletin**” û **“Icosa Labs”** ku berdewam dije vîrûsan diceribînin, pileyeke bilind ya serkevtinê ji bo dije vîrûsa han daniye.

Ev dije vîrûse heta niha weşana 7.1 der ketiye û ew kesên ku dixwazin, dikarin li navnîşanê jêr da bibezînin:
www.grisoft.com/doc/10/lng/us/tpl/tpl01

# Meşa Aştîxwazane Ya Jinan Li Tehranê Bi Xurtî Hate Tepeser Kirin



**Xwenîşandana jinan li Tehranê di roja 12.06.2006’an de**

Roja duşem, 12.06.2006’an, bi beşdariya nêzîk bi 5000 kesan, meş û xwenîşandaneke aştîxwazane ya jinan di qada “7 Tîr” ya Tehranê ji bo xuyakirina nerazîbûna xwe li hember binpêkirina mafên jinan û qanûnên dijî jin yên Komara Îslamî hate lidarxistin. Meşa han bi xurtî ji hêla hêzên taybet û ewlekariyê yên dewleta Îslamî ya Îranê hate tepeser kirin. Li gorî raporên ku ji Tehranê hatine belavkirin, hêzên rejîmê bi awayekî hov û dijwar li jinan dan. Tê gotin ku bi dehan kes û nemaze çend kes ji xebatkarên çeleng yên tevgera mafxwaz ya jinan hatine girtin û ji bo ciheke nediyar birin e.

Di vê meşa nerazîbûnê de jinan daxwaza mafên pêtir yên xwe kirin û xwestin ku wekhevî di navbera mafên jin û mêran de pêk bihê. Qanûnên kevneşop ên Komara Îslamî gelek bi eşkere mafên jinan bin pê dikin û cudahiyên berçav di hemû warên jiyanê de ji bo vê texa mezin û bingehîn li civakê pêk tîn.

**Wêne yê malpera “fokoos”ê ye**

**Bi kuştina Zerqawî derbeyek giran ji laşê Terorîzmê ket**

